Destveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya
Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 138
6'ê Tîrmeha 2010
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

**Em Bîranîna şehîdên kîmyabarana Serdeştê bilind dinirxînin**

7 ê Pûşpera îsal, 21 mîn salvegera kîmyabarana bajarê Serdeştê bû ku 1000 kuştî û birîndar bi dû xwe de hişt. Di doma wan salane de Komara Îslamî netenê giringiyek nedaye wî xelkê belalêdayî, belkî di gelek waran de pêşgirî ji hevkariyên saziyên cîhanî bi wan kiriye.

Di 21'mîn salvegera wê tirajîdiyê de em silavan dişînin bo ruha tev şehîdên wê bûyerê û bo xelkê bişeref yê Serdeştê ku biwêrane her sal vê yadê bilind dinirxînin.

# Guhertina Rejîma Îranê, Cîhanê Jî Diguherîne

R: 6



## Li Îranê Di 10 salan de 265 hezar kes goriyên trafîkê

Serokê Polîsê Trafîka Îranê, Eskender Muminî, diyar kir ku di heyama 10 salên derbasbûyî de 265 hezar û 515 kes ji ber trafîkê canê xwe ji dest dane.

Li gor malpera BBC'ê Eskender Muminî di civîneke çapemeniyê de li Tehranê daye xuyakirin ku niha li Îranê bo her hezar kesan 150 otomobîl hene, di demekê de ev hejmar li piraniya welatan bo hezar kesan 700 otomobîl hebûne, lê bûyerên trafîkê kêmtir in.

Muminî di beşek din ya axaftina xwe de wiha got, "Kêmasiyên zaf di navendên taybet bi trafîk û veguhastinê de hene û dema ku di gel zêdebûna otomobîlan ber bi rû bûn dê pirsgirêkên bingehîn yên welat berfireh bibin".

Hêjayî gotinê ye ku Îran yek ji welatê mezin yê deverê ye ku li gor amaran pêtirî 65 milyon kes di vî welatî de dijîn. û pêtirî 20 salane di wî welatî de tu pevçûnên serbazî çênebûne, lê serhejmariya goriyên tirafîkê seba xemsarî û guhnedana dewletê ji xerabiya rê û cadeyan di wî welatî de ji goriyên şer ên di welatên şerlêdayî pêtir e.

**Paşayê Erebistanê:**

### Komara Îslamî ne hêjayî manê ye

R: 7



**Hişdara Kilîntonê bi tepeserkaran:**

### Dema mista hesinî bi dawî hatiye

R: 7



# Gaziya Komîsyona Teşkîlatê Bi Boneya 21’Mîn Salvegera Terorkirina Dr. Qasimlû Û Hevalên Wî

Hevwelatiyên hêja!
Endam û alîgirên Partiya Demokrat a kurdistana Îranê!

22’ê Pûşpera îsal, 21 sal bi ser terora rêberê navdarê gelê Kurd Dr. Qasimlû, bi destê terorîstên Komara Îslamî derbaz dibe.

Qasimlû ew mirovê ku ji bo kerameta însan û bo aştî û avedaniyê jiya.

Qasimlû ew mirovê ku bo bextewariya civakê û bo dadperweriya civakî xebat kir.

Mirovek ku canê xwe goriyê riya azadiyê û xweseriya takên civakê, xebata xwe bo riya xweziyên xelkê Kurdistanê û gelên zulimlêkirî yên Îranê kir.

Qasimlû li jiyan û xebat û rêberiya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê de hizir û hêz û zanista xwe pêşkêşî bizava gelê Kurd kir û canê xwe di pêxema armancên wî gelî de dana.

Xelkê kurdistanê bi xwîna Qasimlû, belgeya xebat û nesrewtin heya serkevtinê wajo kirin, lewra îro Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û rêberê şehîdê wê, bûne nasname û pênase bo bûn û hermana wan. Hevarmanc, hevçeper, hevxebatî, keç û xort, jin û mêrên nîştimana Qasimlûyê şehîd, di bîranîna dawîn temirandina çirayê jiyana Qasimlû de, demjimêr 10’ê şevê bi dema Tehranê bo demê 3 deqîqan çirayên malên xwe ditemrînin û piştî 3 deqîan, bona nûkirina soz û peymanê ligel xebata Qasimlû carek din çirayên malên xwe dikin çirayên riya armancên Qasimlû û biryar didin, piştî her temirînekê, hilbûnek jinûve heye û riya ronahî ya Qasimlû tim dibiriqe.

Em xatircem in ku xelkê biemeg yên Kurdistanê, li baskê Pişko ve heya binya çiyayên Araratê, rengê esmanî bilind û bê xewş wek heviyên Qasimlû, rengê rûbar, çem û kaniyên weke gavên berdewam ên Qasimlû, rengê hêminî û bawer weke xweziyên Qasimlû bo aştî û avedaniyê, dikin hêmaya rêzlênan ji rêberê herdem zindî di hizr û rêbaz de, bi hildana alaya şîn û bikaranîna rengê şîn bi awayên cur bi cur rewşek taybetî didin wê rojê û nîşan didin ku ew roj rojek taybet û îrada gel bo domandina rêbaza Qasimlû her wa bihêz û bişiyan e.

Xelkê Kurdistanê bi pîr û ciwan, di wê rojê de bi xwekirina kincên xweşik ên Kurdî ji malên xwe derdikevin û bi wî awayî gund, bajar, şeqam, zewî, kargeh û deştê dikin çepera her terze xebatek guncaw bo rêzgirtin ji yada rêberê herdem zîndî Dr. Qasimlûyê nemir û şermezarkirina terorîstên Komara Îslamî a Îranê.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Komîsyona Teşkîlat**
**12’ê Pûşpera 1389 a Rojî**

# Birêveçûna Konferansa Bizava Demokrasîxwazî - Evraz Û Nişîv ên wê Û Putansiyela me

Di rojên 29 - 30 Hezîrana 2010’an li Roma Îtaliyayê, konferansek bi navê “Bizava Demokrasîxwaziyê - evraz û nişîv û putansiyela me” birêve çû. Ew konferans ji aliyê saziya UNPO û bi hevkariya Sinator Marko Pîrloka ji aliyê Partiya Radîkal a Îtaliyayê ve di Senaya Îtraliyayê de birêve çû.

Li gor rapora nûçegihaniya Kurdistanê, di roja yekemîn a konferansê de, hejmarek berbiçav ji endamên Sena û Parlemana Îtaliyayê û herweha partî, sazî û kesayetiyên Îranî “netewên bindest û seranserî” beşdarî kirin.

Bernameya roja yekemîn di salona Kolon, di Senaya Îtaliyayê de birêve çû. Konferans bi pêşkêşkirina gotaran ji aliyê Sînator Marko Pîrloka, Sînator Êma Bonîno “Cihgirê Serokê Sina”, Nangî Miwêrfî “bi nûneratiya saziya UNPO, Sînator Matêw Mêsasî “endamê Perleman û Komîteya karûbarên Derve yê Perlemana Îtaliyayê,” Sînator Piyetro Marsenaro “berpisê Komîteya taybetî a mafê mirov a Senaya Îtaliyayê” û Nasir Poladî “nûnerê Kongireya Netewên Îrana Federal li UNPO dest pêkir.

Di roja yekemîn de 4 panel birêve çûn, ev panel pêkhatibûn ji:

1- Sedema nebûna demokrasiyê çiye?
2- Gihîştin bi demokrasiyê, kopika guhertinan
3- Ewlehiya navxweyî û derveyî
4- Stratejî bo guherîn û rolê civaka navnetewî

Hêjayî gotinê ye ku di panela duyem de Hesen Şerefî, Cihgirê Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi nûneratiya Kongireya Netewên Îrana Federal, gotarek pêşkêş kir.

Roja duyem, konferans li binkeya Partiya Radîkal a Îtaliyayê de birêve çû. Di wê beşa konferansê de tenê hêz û aliyên Îranî beşdarî têde kirin.

Di roja duyemîn a konferansê de, 3 panel birêveçûn û ew panel pêkhatibûn ji:

1- Bizava Kesk di derbazbûyî, niha û pêşerojê de
2- Bizava demokrasîxwazî û bizava jinan
3- Bizava demokrasîxwazî û bizava netewên zulmlêkirî

Hêjayî gotinê ye ku Dr. Mîro Elyar di panela sêyemîn de gotarek di peywendî di gel xalên hevbeş û



arîşeyên opozîsyonê pêşkêş kir. Di wê konferansê de şandeke Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serokatiya Hesen Şerefî, Cihgirê Sekretêrê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê beşdar bû.

Her li bernameyên roja duyemîn de carek din Hesen Şerefî di peywendî di gel netewên Îranê axaftinek pêşkêş kir û got ku mixabin hin caran ji aliyê hin kesan ve bi ew qewm tên navbirin û bi selmandina hin belgeyan li ser netewbûna wan gelan pêdagirî kir

# Pêwendiyên Îran Û Erebistanê!



**Dara Natiq**

Ji hemî aliyek re eyane ku welatê Erebistanê xwediyê pêkhateyekê civakî û çandî a taybet e. Xêl û eşîrên wî welatî ku xwedî çand û rewşt û tîtalên balkêş û navendên berçav û bihêz yên perwerdehiya olî ne, bûye cihê heybet û zengîniya civaka wî welatî. Çavkaniyên mezine petrolê ku yek ji çarêye hemû petrola cîhanê pêk tîne, yê bûye kaniya sereke a dewlemend bûna hakimên wî welatî. Ji aliyekî din ve bûn ziyaretgaha Hecê (Meke) ku di salê de bi milyonan mislmanên cîhanê berê xwe didene wî welatî, wek sitûneke bihêz a abûriya Erebistanê tê hesibandin. Padeşahiya Seûdiyê ku xwe bi rêberê Olî yê cîhana Îslamî dihesbîne, di asta herêmî û nemaze di cîhana Îslamî de rolekî xuya û mezin dilîze û ji aliyê welatên Îslamî û tewgerên Îslamî ve bi avayekî berçav piştgîrî û aîkariya madî jêre tê kirin. Bê guman welatê Erebistanê bi wan taybetmendiyane cihekî şaz û xasmanî di Rojhelata Navîn û nemaze welatên derdora xelîc Farsê de bi xwe girtiye û zirûfa tenahî û siyasî û civakî a wî welatî hertim bûye cihê heybet û temahiya eniyên super hêzên cîhanê û nemaze welatên hevgirtî yên Amerîkayê.

Îran û Erebistan hertim weke du hêzên xwedî bandor di cîhana Îslamî û di pêvajoya guhertinên herêmî û rewş û tenahiya siyasî û civakî nemaze di Rojhilata Navîn û welatên derdora Xelîc Farsê de rolekî berçav li gor berjewendiyên taybetyên xwe dilîzin.

Pêwendiyên Îran û Erebistanê piştî serkevtina tevgera gelên Îranê di sala 1357’an de, ber bi aloziye ve çûn û di 3 dehikên derbas bûyî de gava mirov mêzeyî dîplomasiya navbera wan du welatane dike dixuye ku di wî heyamî de pêwendiya navbera wan du welatane bi sedemên cur bi cur ku em dê amaje pê bikin, gelek evraz û nişîv bi xwe re dîtine.

Hewceye ku di şirovekirina têkilîyên navbera Îran û Erebistanê de enerjî û rola herdu welatan di saziya Opekê de, pêgeha eniyên herêmî û rikeberêyên herêmî û navneteweyî di wê herêma stratejîk de, zirûf û pêgeha Erebistan û Îranê û Sedemên bi bandor di pêwendiyên siyasîye wan du welatane de, xalên hevbeş û cuda ên navbera du welatan, taybetmendiyên padişahiya Erebistanê, arîşe û giriftên hundir ên civaka Erebistanê, bûyera 11’ê september 2001’an, û xesarên wê li ser Erebistanê, zirûfa niha ya Erebistanê, delîveyên li hember Îranê û arîşe û girêpêçkên dûhev li hember Îranê, di dawiyê de dibe hegerên ji hevnizîk bûna ev du welatane di asta herêmî û navneteweyî de divêt bi awayekî zanistî bihê berçav girtin.



Welatê Erebistanê bi berhevdan tevî welatên Erebî ên derdora Xelîc Farsê, di warê weşandina siyasetên derweyî û riftara tevî superhêz bi awayekî serbixwe dilive, ku ev siyaseta han zaf caran tevî hizr û nêrînên Îranê ji bo kêmreng kirina rola meznehêzên cîhanî herêmî di derdora xelîc Farsê de hev digrin û hin caran weke sedemek stratejîk bi awayek û nerasterast bo jihev nizîkbûna wan du welatane tê hesibandin. Lê bi ronî diyare ku Erebistan bi alîkarî û ravêj tevî lîstikvanên bingehîn ên herêmî nemaze Îranê, pêvajoya guhertinên çend salên Dawî derheq dijberî kirin tevî berjewendiyên super hêzên cîhanî di Rojhilata Navîn de xwedî bandorek mezin û berçav bûye.

Siyaseta dewleta Bûş piştî bûyera 11’ê Septambera 2001’an, bi taybetî sûçdakirina seûdiyan bi hevkarîkirina terorîzmê û gelaleya Rojhilata Navîn a mezin û siyaseta guhartin û cihgîrkirina demokrasiyê li welatên Erebî û herwisan êrîş bo ser Îraqê, serbarê nerazîbûna beşeke berbiçav ji welatên herêmî, tirs û bêbawerî dinava rayedarên dewleta Erebistanê derheq bi Amerîka û siyasetên wê di herêmê de pêk anî. Lê ev çende bû ye delîveyek baş bo ji hev nizîkbûna her du welatên Îran û Erebistanê, jiber ku li gor pêvajoya siyasetên Amerîkayê li herêmê de desthilatdariya her du welatan tevî tirs û nemanê berbirû bû.

Lê ji aliyekî din ve di asta herêmî de zêdetir bûna rola têkderane û berbiçav a Îranê li Efxanistan, Lubnan, Felistîn û nemaze Îraqê yê bûye cihê nerazîbûn û nigeraniya Erebistanê. Weke tê xuya kirin guhartin û bûyerên çend salên dawî ên Rojhilata Navîn bûye sebebê xurtbûna rol û pêgeha Komara Îslamî û şîeyan û herwisa bûye cihê nigeranî û ji xweketina Erebistanê bi awayên cur bi cur bo kêmreng kirina bandora Îranê li ser welatên herêmê de.

Îran, Îraq û Erebistan hertim weke 3 welatên girîng û bibandor di herêmê de dihatin dîtin. Li hevhatina du ji wan 3 welatan dikarî kartêkirinek berçav û hewce li ser pirs û guhartinên kûr û girîng ên herêmê çêbike. Lewra Erebistan hertim cehdê dike ku welatê Îraqê wek alavek bo bihêztir kirina rolê xwe di herêmê de bikar bîne û rolê Îranê û şîeyan di Îraqê de kêmreng bike.

Erebistan hertim xwe weke berevankarê Îslama Sune dide eyanê û derheq bi nfûza şieyan û kêmreng bûna rolê sunayan di Îraq, Lubnan û Behrêynê de nigerane.

Erebistan hêz û şiyana aloztirkirina zêdetire zirûfa tenahiya siyasî û civakî a herêmê ji rêka piştevanî kirin ji tevgerên dijberî şîeyana heye û di vê dawiyê de bi awayekî eşkere fitwa û ragihandinên saziyên suneyan dijî şîeyan zêdetir bûye ku ev yeke jî bûye cihê nigeranî û nerazîbûna Komara Îslamî a Îranê.

Nêrînek kurt derheq bi taybeytmendiyên Îranê û Erebistana Seûdî di çarçoveya pirsên wek rola her du welatîn di cîhana Îslamê de, mesleya Hecê, bazara Peterolê, çalakbûna her du welatan di qada navneteweyî û herêmê û Îslamî de, zirûfa teybet a Coxrafiya Xelîc Farsê û pêkhateya kêmaniyên sune û şîe di wê herêmê de, girîngî û bihaya Îran û Erebistanê ji hevre dide xuya kirin. Lê li qirax wan fakterên ku me îşare pê kir, netifaqiya navbera Îran û Erebistanê ku çavkanî girtî ji hegerên weke: çavanî û pêkhateya hikûmetê, tenahiya herêmî, pêwendiya tevî Amerîkayê. Îdolojiya Wehabiyet û Şîe, piştevanî kirina Erebistanê ji sedem bi dirêjiya 8 sal şer tevî Îranê, siyasetên cudahiya Îran û Erebistan li Efxanistan, Îraq, Lubnan û Felistînê, dide xuya kirin ku geşekirin û xurtbûna pêwendiyên Komara Îslamî û Erebistana Seûdî ku herduk daxwazkarê rêberêkirina cîhana Îslamê ne, tevî dubendî û rikeberiyên aloz û dijwar berbirûye û gav avêtin di vê pêvajoa han de hewcehî bi hûrbîniyekî zaf heye.

# Karta Sor A Cîhanî Bi Komara Îslamî A Îranê



**Selîm Zencîrî**

Piştî midehek zaf got û bejên bêencam bo dawîanîn bi serberedayiyên etomî yên Îranê, serencam Şêwra Ewlekar a NY' biryarnameya Çaremîn a dorpêçan li 19'ê Cozerdanê de li dijî wî welatî pesend kir. Bi watayek din Komara Îslamî li hember domandina bernameyên navikî bi bê berçavgirtina xwastên navnetewî ji aliyê civaka navnetewî ve cezayek nû û girantir bi ser de hat sepandin ku bazneya dorpêçan li dijî bertengtir û qada tekoşîn û manordanê jî lê bişktir dike. Ew tehrîm ji hêlek din ve jî nîşandana karta sor a cîhanî û yekêtî û yekrefiya cîhanî li hember Komara Îslamî de digehîne û serbarê wê ku dikare alîkar be bo teneman û îzoletir bûna pitir a rejîmê li asta navnetewî de, herweha dikare kirîzên siyasî û abûrî yên Îranê li hundur de jî kûrtir û şeqarên navbera wan de jî berîntir bike.

Eve jî li halekê de bû ku Komara Îslamî bi hemû şiyan û karîna xwe ve, hewil da ku riyekê ji bo helatin ji vê kirîzê û pêşiya pesendkirina wê biryarnameyê( çi bi bacdan bi Tirkiye û Birazîlê, û çi jî weke puandan, dîplomasî û paranewe) bigre, lê tu yek ji wan nekarî çareya derdê rejîmê bikin û bêencam man. Çunku êdî destê mirar yê rejîmê ji hemû kesê re rû bûye û hemû kes û alî ji niyet û armancên pîs yên rejîmê têgihîştine. Lewma serbarê wê ku Kunseya Ewlekar biryarnameya 1929 li dijî Îranê pesend kir, her yek ji Amerîka, Yekêtiya Ewropa, Usturaliya, Kureya Başûr, Japon, Kanada û Îmaratên Yekgirtî yên Erebî bi cuda tehrîm xistine ser rejîmê ku eva jî eyankerê dorandin û şikestek mezine li siyaseta derve ya rejîmê de.

**Lênihêrînek bi biryarnameyê û cudahiyên bi yên berê re**

Raste ku biryarnameya dawîn li gor yên berê tundtir e, lê dîsan bi wî awayî nine ku Komara Îslamî pê seqet û felec bike, çunku didanên wê ji aliyê Rûsiya û Çînê ve hatine kişandin, lê dîsan jî dikare givaşîn zêde û bi azar bigehîne rejîmê. Biryarname serbarê wê ku daxwazê ji berpirsên rejîmê dike ku mehandina uraniyomê rawestînin, çalakiyên Spaha pasdaran û hêlên gemîvaniya Îranê û veguhastina silahên giran bi Îranê bi armanc girtiye û rê ji bo pişkivandin û ragirtina her barek biguman ji riyên avî, zewî û asîman ve bi meqseda Îranê bi dewletan dide.

Lewre xincî naveroka biryarnameyê, ew hevdengî û komdengiya ku vê carê li helwesta siyasî a welatên 5+1 de hat dîtin, tiştek cuda bû. Bi taybet helwesta Çîn û Rûsiya ku berê dijî xurtbûna tehrîman û nemaze gefa bikaranîna mafê Vetoyê dixwarin, vê carê avek tezî û sar berdaye ser destê rejîmê û derbek siyasî ya ewqas giran ji rejîmê re bû ku Ehmedînijad anî ziman û Rûsiya bi dujminatiya li gel xelkê Îranê tawanbar kir.

Xalek din ku cudahiyan berçawtir dike, hevdem îşare kirin bi pêpeskirina mafê mirov ji aliyê karbidestên rejîmê ve bû ku heta duh ketibû perawêza pirsa navikî a rejîmê yan jî bi awayekê bêdengî lê dihat kirin.

**Dorpêçên yekalî yên Amerîka, Yekêtiya Ewropa û ...**

Piştî pesendkirina biryarnameyê her yek ji Sena ( bi piraniya dengan 99) û Kongireya Amerîkayê (bi 400 dengên ERÊ li hember 8 dengên NA) gelaleyek pesend kirin ku beşa enerjî, bankdarî û pêpeskarên mafên mirov li Îranê bi armanc girtiye û zaf kompaniyên neftî, bîme, bank, kesên "heqîqî û hiqûqî" yên rejîmê û herweha qedexe kirina firotin û derfirotina Bınzîn, Gazayîl û şewata motora Cêt li çarçoveya gelelê de cî girtiye. Bi taybetî ku navê Spaha Pasdaran û kompaniyên girêdayî wê, fermanderê Spahê û Wezîrê Berevaniya rejîmê bi eşkereyî hatiye û piştî wajoya Obama yasayî û dê bikewin warê piratîk ve.

Li heman demê de Yekêtiya Ewropayê jî ku şirîkê eslî yê ticaretê li gel Îranê ye, ji ber serberedayîtî, riyakarî û metirsîdar bûna rejîmê, riya pêwedan û sepandina hisarên yekalî ji bo kemilîn û bihêz kirina tehrîmên Civata Ewlekar girte ber xwe. Bi taybet ku beşa enerjî anku neft û binzînê bi nîşane digre.



Ji aliyek din ve jî G8 li dawîn rûniştina xwe li Kandayê de welatên cîhanê raspard ku tehrîmên NY bixin warê piratîk ve. Çunku rejîm li arasteya çêkirina çekên etomî de gavan dawêje. Herwiha bi anîne hola meseleya mafê mirov û pêpeskirina wê ji aliyê rejîma dijî mirovî ve, gavek din ya micid ji bo biçokde anîna rejîma Tehranê avêt. Xincî welatên navhatî û poşman bûna çendîn kompaniyên cînanî bo firotina binzînê bi Îranê, Îmareta Erebî jî ku bi yek ji girîngtirîn pêgehên çalakiyên aborî û bazerganî yên Spaha Pasdaran û helqeya pêwendiyên wan bi welatên din tê zanîn, tevlî kempîna tehrîmên cîhanî dijî rejîmê bû û dest bi ser 41 hesabên bankî yên Îranê û herweha firotina binzîna 10 kompaniyan bi Îranê ragirt ku eve jî derbek giran ya din e ku ji cismê nesax yê Komara Îslamî tê dayîn.

**Helwesta rejîmê**

Yekêtî, helwest û yekdengiya cîhanî li dijî rejîmê, li rastî de ew gêj û ecêbgirtî kirin û her yek ji wan bi awayekê helwest û nerazîbûna xwe derbirîn, Bi taybet ku dîsan bi dûr ji pirensîpên exlaqî û li cihê bixwe dehatinê, hewsarê teledînk û serşêtê xwe vekirin û wî jî bi zimanê bêrêzî û gef ve, şibî mestan li deşta îzolebûn û tenêmana Komara Îslamî de dinirrand û biryarname bi desmalek bêkêr û bo nav kirsdankê wesfand û dîsan ev derfet û peyama rohn a cîhanî nedîtî û nebihîstî wergirt û serbarê berdewamî li rêbaza xwe de, şert û mercan bo got û bêjan diyarî dike û jewe ye ku dîsan dê bikare civaka navnetewî baxapîne û demê bi qazanca xwe heder bide. Lê bêhay ji wê ku li qobiyekê de çeqiye ku derketin jê zehmet e û renge şans û bextê dawîn be jêre û bahoz koşka xeyalên wî têk bide û dawî bi xewna rêberîkirina wî ya cîhanê bîne.

**Encam**

Ew dorpêçên Şêwra Ewlekar û her yek ji welatan, serbarê wê ku nîşan dide Komara Îslamî weke rejîmek dîktator, serberredayî û metirsîdar ketiye ber kerb û nifreta cîhanî, belkî nîşanderê bêparbûna rejîmê ji hitbar, erziş û buhayên mirovî, dîplomatîk û siyasî ye li asta navnetewî de. Lewre serbarê wê ku tehrîm qada tekoşînê bazneya dewra wê tengtir û givaşên zêdetir dixe ser, bi taybet ku niha seneta neft û gaza Îranê hewcehî bi nûjenkirin û teknolojiya serdem heye, dikare Îranê ber bi rewşek aloztir û pir kirîztir pal bide. Lê rastiyek jî heye ku ew tehrîmane weke sûr (şimşîr)ek dudev e ku him xelkê digre û him jî dewletê û li vê zirûfê de tesîr û bandora herî xirab li ser xelkê û gelên Îranê dike û weke jehrek kuşende dê tama jiyana xelkê nav bibe û hêla hejarî û belengaziyê duhember dike.

Bi giştî li egera bicîanîna wan dorpêç û givaşan de, rejîm dikewe durêyekê. Yan teslîm bûn li hember xwasta cîhanî yan jî domandina serhişkî û kulandina qebrê xwe bi destê xwe. Lê hawrîdanek bi riftarên rejîmê li salên derbasbûyî de derdixe ku rîçareyên dîpomatîk nekarîne rejîmê neçar bi peyrewî kirin ji yasayên navnetewî bike. Lewre paşdekişyan jî wateya mirina rejîmê digehîne. Çunku eva siroştê rejîmên dîktator û yek ji wan jî Komara Îslamî ye ku dixwazin mana xwe bi tund û tûjî, givaş û çeka etomî garantî bikin, lewre sermestane diçe pêş û bi wî awayî jî dibe bi gef û xeteriyek mezin bo ser aştî û tenahiya hemû cîhanê, ku eva jî bezandina hêla sor a cîhanî digehîne. Lewre divêt em çavnihêriya encamên metirsîdar bikin.

## RONÎ

## Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên ”Agirî” re



**Ebdulla Hicab**

# Bikuj Û Qurbanî

Biryara Navenada Dadê ya hêzên Çekdare Komara Îslamî di derheqa 2 kesên ku weke tawanbarên cinayetên girtîgeha *Kehrîzek* hatin nîşandan, ciyê baldarnê bû. Salek piştî eşkerebûna beşek ji cinayetên Komara Îslamî di wê girtîgehê de, qaşo ku haya karbidestên asta jor jê nîne, rêjîmê hin kes ji birêveberên pile nizm û nobedarên girtîgehê girtin û di dawiyê de ji bo 2 kesan biryara darvekirinê û ji bo 9 kesan jî cezayê sivik diyarî kir. Hêviya rêjîmê ev bû ku bi wê pêgava sembolîk û bi qurbanî kirina hin karbidestên xwe yên asta nişîv, tawana kuştina girtiyên siyasî di bin Îşkenceyê de li ser xwe hilde.

Navê *Kehrîzek* weke navenda herî bi tirs û tehlîkeye Îşkencê di Komara Îslamî de, piştî bûyerên sala 2009 kete rojeva siyasiye Îranê û weke navên “Emna sor ya” Silêmanî û “Ebû Xureyb” a Îraqê bû sembola Îşkencegehên rêjîma Îranê. Dema hin kesên nêzîk ji kesayetiyên naskirî di nava sîstema Îranê de birin wê Îşkencegehê û bi wî awayî nûçeya cinayetan derket derveyî girtîgehê, êdî Komara Îslamî nekarî hebûna navendek weha tije cinayet veşêre û bi neçar ma ku ji riyekê bigere heya xwe ji wê rûreşiya mezin derbas bike. Lewma bi fermana Xamineyî ew girtîgeh di sala 2009 de hate daxistin û cinayet û binpê kirinên mafê mirovan ku li wir dihatin kirin derbasî girtîgeha Êvîn a Tehranê û navendên Îşkencê di girtîgehên din de kirin.

Bi ragehandina biryara dawî ya Dadgeha hêzên çekdar re, Komara Îslamî tu nav ranegehandin heya eşkere be ka ew du kesên ku tên bi darvekirin kî ne, lewma hê di bin gumanê de ye ka gelo wê kes ji ber wan tawanan bê ceza dan an na. Lê eger bê û em wisan bihesibinin ku niha Komara Îslamî 2 kes ji çekdarên xwe ji ber cinayetên di derheqa girtiyên girtîgeha *Kehrîzekê* îdam dike, wê demê hin pirs dikevin rojevê ku rêjîm dibe bersiva wan bide. Pirsên weke; Ka gelo ev 30 salin çend kes di bin Îşkenceyên Komara Îslamî de hatine kuştin û ji ber çi kes bikujên wan napirse. Kî berpirsyarê sereke ye siyaseta eşkence û kuştinê ye û çima kes ji tawanbarên sereke napirse. Gelo kewirbaran kirin, bê hurmetî kirin ji keramet û kesayetiya mirovan re, qamçî lêdan, Îşkenceya li ser girtiyên siyasiye ser bi rêkxistinên opozisyonê, bêhurmetî kirin bi kesayetiyên siyasî û bi sedan mînak ji kiryarên derveyî exlaqê mirovatiyê hemû bi fermana kî û di çarçoveya kîjan yasayê de tên kirin û çima ew nayên guherîn û kes ji ber wan cinayetan nayê ceza dan.

Her yek ji wan pirsan bi xwe basek têra xwe dixwaze. Lê ger mirov hemû wan pirs û mijaran bide aliyekê ve, bi xwe berpirsayetiya tak di çarçoveya sîsteman de mijarek bingehîne. Qedera ew du kesên ku qaşo ji ber cinayetên *Kehrîzekê* bi darvekirinê re hatine ceza dan dikare ji taken din ku di çarçoveya Komara îslamî de cinayetan dikin re bibe îbret. Biryara rêjîmê di derheqê karbidestên xwe yên cinayetkar de dubare nîşan dide ku her tak û her kesê ku fermana serdestên xwe birêve dibe pêwîste beriya ku karekî bike, ji encamên karê xwe bifikire û wê bizane ku di dema hesab jê pirsînê de, tu kes û tu karbidest amade nîne ji takek weha re xwedî derkeve.



Yekem dersa ku qedera qurbaniyên nû yên sîstema Komara Îslamî, ku di dema xwe de bi xwe beşek ji qewareya pir ji cinayete rêjîmê bûn, derdixe holê ewe ku tak di hember kiryarên xwe de bi xwe berpirsiyare, heta di wê demê de jî ku ew tak di çarçoveya sîstekê de kar bike ku wî neçar dike bi wî awayî tev bigere. Kesên ku Komara Îslamî niha bi navê sebebkarên serekye cinayetên ku di girtîgeha *Kehrîzeké* de birêve çûne dide nasandin û niha dixwaze wan bike qurbanî, takên herî girêdayî bi pîvan û prensîpên rêjîmê re bûn. Wan bi tenê fermana Xamineyî û berpirsyarên din yên rêjîmê birêve birine ku dijber û rexnegirên xwe tînin rêza Şeytanan û kuştina wan weke xizmetek mezin ji bo Îslam û diyanetê didin nasandin. Lê me dubare dît ku dema roja jêpirsînê hat, Xameneyî û cinayetkarên asta serve xwe dane palê û ew kes kirin qurbanî.

Sîstem çiqas şidyayî û dijî mirovatiyê be, lê dîsan tak derfeta hilbijartinê heye û pêwîste bikare biryarên ku li gel pîvanên exlaq û usûlên mirovatiyê hev nagrin birêve nebe. Oskar Sçindler karsazek Almanî û endamê partiya Nazî ya Hîtler bû ku sala 1939 ji bo qazanc kirina pere çû Krakow li Poloniya (Lehistan) û xwest ji hêza belaşe cihûyên ku dibirin kampên mirinê bo berjewendiya xwe sûd werbigre. Di dema herî bi tehlîkeye qir kirina Cihûyên Alaman û Poloniya, Sçindler ji jiyana xwe maye danî û karî bi kêmî yek hezar cihûyan ji mirinê xelas bike. Wî dersek da kesên ku di çarçoveya sîstemên dîktator de kar dikin ku ger bixwazin, dikarin bi awayek cuda ji dîkatorên deselatdar tev bigerin.

Qedera qurbaniyên nûye Komara Îslamî dubare nîşan dide ku ji bo sîstemên dîktator kesên ku di xizmeta wê de ne, bi tenê weke “emraz” ji bo pêşvebirina pilan û bernameyên karbidestan tên bi kar anîn û dema dîroka bikaranîna wan bi dawî hat, weke her emrazek din ew jî tên avêtin. û ji hindê jî hê eşkeretir, ewe ku di çarçoveya sîstemên weha de, kesên herî tundajo beriya her kesên din dibin qurbaniyê bêexlaqiya xwe. Çunkî tu sîstem, di dema tengasiyê an di dema vebûn û asûdeiyê de ji kesên tundajo, bê prensîb û cinayetkar heta dema ku ev cinayet di xizmeta parastina berjewendiyên sîstemê de bin û bi fermana karbidestan birêve çûbin, xwedî dernakevin.

Parastina kerameta mirovan heta di dema şer û pevçûnan, serdestî û bindestiyê û di dema netifaqiyan de mercê serekeye jiyana asûde ye. Ji bo bicîh kirina vê pîvanê tak jî dikare xwedî biryar û xwedî bandor be. Qedera karbidestên rêjîmê ku piştî cinayetên ku ji bo parastina rêjîma Komara Îslamî dikin, bi xwe dibin qurbanî û weke tawanbarên cinayeta *Kehrîzekê* tên ceza dan, pêwîste ji bo hemû ew kesên ku îro siyasetên Komara Îslamî birêve dibin bibe ders. Dîktator û sîstemên ku mirovan weke emraz temaşe dikin, di dema tengasiyê de amade ne her kesî û her tiştî bikin qurbanî. Ew sîstem ji kesî re mal nîne û her kes an aliyê ku rojek ji ya din zûtir ji wê sîstemê û ji siyasetên wê dûr bikeve pitir ji xwe, ji kesayetî, maf û ji pêşeroja xwe xwedî derdikeve.

## Şandekî PDKÎ Serdana Nûneratiya BDP'ê Li Amerîkayê Kir

Roja 24'ê Hezîrana 2010'an, şandekî PDKÎ li Amerîkayê pêkhatî ji: Şerîf Bêhrûz ''nûnerê PDKÎ li Amerîkayê û Cemal Ebdulazade ''berpirsê Komîteya Partiyê li Amerîkayê, seredana Deftera nûneratiya Partiya Demokrasî û Aştiyê ''BDP''ê li Waşîngtonê kir û ji aliyê Nezmî Gûrî, berpirsê Bîroya nûneratiya vê partiyê ve hat pêşwazîkirin.

Şanda PDKÎ tevî pîrozbahî kirin ji BDP bona vekirina nûneratiya xwe li Waşîngtonê, hêviya serkevtinê bo partiya navhatî li bicih gihandina erkên xwe bo xizmetkirin bi gel û nîştiman de xwast.

Di vê hevdîtinê de, her du aliyan li ser xurtkirina peywendiyên bihevre li pêşerojê bi taybet li hevkariyên di Rêxistina Entir Nasyonala Sosyalîst û herweha li Amerîkayê de tekez kirin û hêvî xwastin ku bikarin gavên hevpar li pêvajoya xizmetkirin bi gelê kurd de bawêjin.

Hêjayî gotinê ye ku heyamek berî niha, BDP'ê bo cara yekemîn nûneratiya xwe bi fermî li Waşîngtonê de vekir.

## Mehnameya Kurdî– Farsî A Sirwe Ji Weşanê Sekinî



Mehnameya Sirwe ku bi du zimanên Kurdî û Farsî dihat weşandin, piştî 25 salan û 281 hejamar çap û belavbûnê ji weşanê sekinî.

Li gor Nûçegihaniya (Mêhr) li bajarê Sine sedema rawestandina wê mehnameyê pirsgirêkên malî bûye.

Bêhrûz Ceiferî, berpirsê wê mehnameyê di gotûbêjekê de ligel Nûçegihaniya (Mêhr) de got: li gor zanyariyan ku li navenda weşandina çandî – edebî ya Kurdî gihîştine destê wan, endamên wê mehnamê naxwazin ji weşandina wê berdewam bin. Navhatî herwiha ragihand li çend salên borî de komek ji endam û alîgirên çandî – edebî yên zimanê Kurdî di vê blavokê de çalakî dikirin û bi vî awayî heta xercên vê mehê jî kişane dibûne stuyê xwe.

Rojev

## Guhertina Rejîma Îranê, Cîhanê Jî Diguherîne

**W : Arîn**

Tenê bînin pêş çavên xwe ku guhertina rejîmê li Îranê de dikare çi guhertinekê li cîhanê de pêk bîne.

Gelek girê li gavekê de vedibin û gellek pirsgirêk jî bihevre çareser dibin. Lê rawestin ku em qazanc û berjewendiyên vê yekê binirxînin. Mifahên wê ewqas zor in ku Obama û tîma wî divêt hetmen tama wê bikin. Wekî diyar û berçav gelek hêzên leşkirî yên Amerîka, Îsraîl û Ewropayê çûne Xelîcfarsê û hêj jî diçin. Gelo ma qey şerek li rê de ye? Renge em ber bi wê yekê ve biçin. Çunku erebên sunnî yên derdora Xelîcfarsê tirsek mezin ji Îranê hene û li benda yekî din in ku li vê navberê de bê û desttêwerdanekê bike. Nemaze renge weke operasiyona azadkirina Kuwêtê, çavkaniyên malî yên wê jî dabîn bikin. Obama divêt bifikire ku pirsa Efxanistanê jî bi wê yekê çareser dibe, jiber ku guhertina rejîmê, xetera desttêwerdan û maytêkirina welatên dîktator li deverê de kêmtir dike. Renge jî eva dawîn rê be û Serokkomarê Amerîkayê çareyek din xincî wê nebe.

**Hêlên veguhastinê bo Efxanistanê**

Êdî pirsgirêk li holê de nabe û ew mesele jî namîne ger ku Qirqîzistanê rê girt, divêt Ozbekistanê bibîne ku nawend û pêgeha leşkirî ya Amerîkayê negre. Îran baştirîn rê ji bo veguhastina hêzê bi deverên rojavayê Efxanistanê ye ku li wir, Talîban jî naxuyin. Bi beşdariya Îranek hevgirtî û hevkar, Amerîka jî baştir dikare şerê Efxanistanê pêşde bibe. Niha ev pirsiyare derdikewe holê ku guhertina rejîmê çi tesîrek li cîhanê de dibe?

**Êdî hewcehî bi berminetiya Moskoyê nake.**

Mosko rayek eşkere û negor derheq hevkariya Komarên berê yên Soviyeta berê ji bo alîkarîkirina Efxanistanê heye. Rûsiya herwiha bi hêsanî ji bo pêşgirtin ji pirogramên navikî yên Komara Îslamî hevkariyan nake. Bi guhertina rejîma Îranê, Amerîkayê alavek givaşxistine ser Rûsiyayê dikewe dest. Li encam de, ji Lehistanê ve bigre heya Gorcistanê, hemû dever dê peyama azadî, û azadîxwaziya ji desthilat û serdestiya Rûsyayê de bidest bixin.

**Pirsa navikî**

Him xetera Îrana etomî li nav namîne û him jî rikeberanêya sîlahî û etomî li deverê de bidawî tê û tu hewcehiyek bi bacdan û hezîneya berlêgirtinê jî namîne.

**Îraqek azad**

Bi nemana desttêwerdana rejîma Îranê bo piştewanîkirin ji şîeyên Îraqê, êdî alavek givaşê bo ser kar û barên navxweyî yên Îraqê namîne. Kiryarên terorîstî li wir kêm dibin û tirsa Sunniyan ji Îranê jî li deverê de direve.

**Lubnanek azad**

Bêy piştevanî ji Hizbulahê û pereyên ku Tehran li başûra Lubnanê de serf dike, xeterek têkderane li Rojhilata Navîn de namîne.



**Ewlehî ji bo Îsraîlê, azadî ji bo Xezeyê**

Piştevaniya rejîmê ji Hemasê li Xezê û Hizbulahê li Lubnanê de him pêvajoya aştiyê têk dide, him jî fitne û şerxwazan bihêztir dike.

**Nift erzantir dibe**

Bi nemana rejîmê û dorpêçan, Îran dê bikare seneta nifta xwe nûjen û asta berhemanînê jorde bibe. Êdî xetera girêdana tengava Hormizê jî namîne û buhaya neftê bi hêsanî tê kuntirolkirin û li astek navincî de dê bihê ragirtin.

**Asyaya navîn azadtir**

Hejmarek zêde ji çavkaniyên neft û gazê ji aliyê din yê behra Xezerê ve dikarin bigihîjine Îranê. Pêwendiya Asyaya Navîn û rojava, Îran û Rûsiya ne û ger ew îmkan çêbibe, êdî hewcehî bi hezîne û têçoya zaf li dor çêkirina hêla lûleya Azerbaycanê (ji Bakû ve bo Ceyhûnê) nake û girêdayîbûna welatên Asyaya Navîn bi Rûsiyayê bo veguhastinê jî bo her tim tê guhertin.

**Îran azad dibe**

Girîngtir ji hemûyan xelkê Îranê jî dikarin piştî ewqas xwîn, nirx û gorîdanê, saman û dahata ku ji wan hatibû talankirin, bistînin û weke Îraqiyan pêşeroja xwe biafirînin û ji azadiyê bimifah bin. Ma Îranek azad baştir e yan tepeserî, îşkence û qetlîam?

**Hêza Rûsiyayê**

Hêza împeryalîstî ya Rûsiyayê jî bi dawî tê û dexaleta wê li Rojhilata Navîn û firotina çek û teqemeniyan bi Sûriyê û desttêwerdana Sûriyê jî li Îraqê de bi dawî tê. Nivîskar paşan li dawiyê de diçe ser vê yekê ku me li rojava de jiyanek xweş heye û em bi şans û bext in ku zirûf û rewşek wiha li welatên me de nine. Li warê dîrokî ve em xwe naveşêrin û divêt bo jiyanek baştir hevkariya xelkê din jî bikin.

Behs û nîqaş bi rejîma Îranê re bêfeyde ye û divêt em bizanin ku rejîmên hankî, him xelkê xwe jinav dibin û him jî nezma cîhanî dixin xeteriyê. Erê gelo ma ev yeke pênaseya Komara Îslamî nine? Tiştek eyan e, Obama dikare cîhanê vexwîne rex xwe û teklîf û çarenivîsa nîqaş û kirîza etomî ya Îranê rohn bike. Lê xweparastin ji wê, wekî vê ye ku mirov difin (poz)a xwe ji rûmeta xwe jêveke heya ku ji bo yên din hesasiyet û ''kînetûzî'' pêk neîne. Tiştek din jî mirov dikare zêdeyî vê encamgîriyê bike, ger rejîma Îranê li tengava Hormizê de bombeyek etomî biteqîne, aboriya cîhanê dê çawan ser û bin û têk biçe. Wê demê çi? Birêz Obama ger ew biqewime, hûnê çi bikin?

**Ji kovara Forbes/ Malik Kaylan**

# Du Lîder: Simko û Dr. Qasimlo



Kakşar Oremar

Havîna sala 1930'yî lîderê naskirî yê kurdan "Simkoyê Şikak" li bajarê Şino hate kuştin. Ev ne cara yekê bû ku Riza Pehlewî bi awayekî nemerdane serokekî kurd dikuşt, belkî beriya wê "Qacarî" û "Sefewîyan" jî riyeke wiha dabûn ber xwe. Mîrasekî wiha wek çandekê niha jî li Îranê berdewam e!..

Dîktatorekî weke "Riza Pehlewiyê Mîrpenc" ji bo sentralîzekirina îqtidarê, hemû gire-girên kurd û îranî bi awayê xapandinê û hîlegeriyên xwe yên taybet, davêtin zindanên reş an jî di çaxê gotûbêjê de ew dikuştin. Simko jî dema ku bi rayedarên dewleta Îranê re li ser riyên çareseriya "Pirsgirêka Kurd" hatibû bajarê Şino, li pey planeke ji berê amadekirî, bi awayekî terorîstî hate kuştin. Di hemen salê da, Ebdulrehman Qasimlo li bajarê Urmiyê hate dinê. Bajarê ku demekê paytextê desthilatdariya Simkoyê Şikak bû û li wir dîrok şahidê gelek bûyer û pêngavên mezin bû ku ji hêla kurdan ve hatibûn avêtin.

Em kurd ji dîroka xwe pend û îbretan nastînin. Dubarebûn û çenbarebûn jî me ji xewên sedsalan şiyar nake. Tevî ku bira, bav û kalikên Simko tev bi destê Sefewî û Qacariyan hatibûn kuştin, mixabin ew jî ket wê davikê û hêviyên kurdan ên azadîxwaziyê bo demeke dirêj, çilmisîn. Gotina:" bextê ecema tuneye" li pey kar û kiryarên wiha dûr ji pirensîpên exlaqî, bû meselek ku kurd tu carî baweriya xwe bi hikûmetên Îranê neynin. Nemir Mihemed Visûqdulê (bavê Dr. E. Qasimlo) mirovekî zana û dûrbîn bû. Ew li kêleka Peşewa Qazî Mihemed bû û heya dawiya jiyana xwe wek endamekî Komeleya Jiyanewey Kurd(J.K) bi sûnda xwe wefedar mabû. Dema ku dibîne kurê wî Ebdulrehman ketiye pey karê kurdîniyê, şîreteke wiha jê re dike: "Kurê min, em bi sedan salan in ku ecema nas dikin. Te dest bi karekî pîroz kiriye lê baweriya xwe tu carî bi wan neyne. Ger ecem rastî te hatin: an wan bikuje, an ji ber bireve an jî yê te bikujin..."





Tevî ku Dr. Qasimlo di cîhana siyasetê de xwedî tecrubeyên teorî û piraktîk bû, roja 13'ê tîrmeha 1989'an di dilê Ewropa de ji hêla D'plomat terorîstên Komara "slamî ve, hate şehîdkirin. Ew di pirtûka xwe ya bi navê "Kurdistan û Kurd" de gilî û gazinan li Simkoyê Şikak dike ka "çima û çawa baweriya xwe bi Ecema aniye û rihet bi destê wan hatiye şehîdkirin", lê tevî ku ferqeke mezin di navbera çaxê jiyana wî û Simko da hebû, ew jî ket wê dafikê û dewleta Îranê careke din gotina bav-kalan"bextê ecema tuneye..." bi bîra herkesî anî. Qasimlo dîplomatekî jîr û baweriya wî bi demokrasî û aştiyê wisa bihêz bû ku xwest ji derfetê sûdê bistîne ku rê li ber xwînrêjiyê bê girtin. Lê lojîk û mentiqa rayedarên Komara Îslamî heman mentiqa padişahên Sefewî, Qacarî û Pehlewî bû. Ew hîşta jî li ser vê siyaseta xwe ya teror û xapandinê bi îsrar in. Dagîrkerên Kurdistanê baş dizanin ku kurd wek netewe pir bi lîderên xwe yên xwedî karîzma ve girêdayî ne. Bi vê sedemê ew tim li pey nêçîra serok û mezinên kurdan in. Ger dîtin nikarin bi riya "terora şexsiyetê" wan di çavê gel de sivik bikin, êdî biryara "terora fizîkî" didin. Li pey terora lîderekî weke Simkoyê Şikak, doza kurd li rojhelatê Kurdistanê demekê bêdeng ma, lê piştre: Pêşewa Qazî Mihemed, Dr. Qasimlo, Dr. Sadiq Şerfekendî û yên din ew rêbaza muqedes û pîroz berdewam kirin. Îro jî bi hezaran "Gerîla" û "Pêşmerge" li ser vê riya pîroz dimeşin. "Simko"yek şehîd bû, lê niha bi hezaran "Simko" hene. Dijimin gere vê rastiyê bizane ku "mekteba Simko, Qazî û Qasimlo" tijiye ji xwendevanên wan yên jîr û canfîda ku ji bo azadiya Kurdistanê têdikoşin. Manifestoya wan, hemû xeyalên dagîrkeran pûç kirin. Bi vê re ez ji terorîst û terorperwerên Îranî dipirsim: Gelo kê feyde kir? We karî bi kuştina Simko, Qazî, Qasimlo, Şerefkendî, Ferzad û Şirîn Elemhûlî agirê doza Kurdistanê vemirînin?

Ji azadiyawelat

Paşayê Erebistanê:

## Komara Îslamî ne hêjayî manê ye

Rojnameya Fîgaro eşkere kir ku Paşayê Erebistanê di hevdîtinek bi Wezîrê Derve yê Firansayê re gotiye ku du welat hêjayî manê ninin. Îran û Îsraîl.

Ew gotina tund a Melik Ebdulla li ser Îran û Îsraîlê weke du welatên dujminê Erebistanê ji aliyê du çavkaniyên dîplomatîk ên Firansa li Parîsê hate teîdkirin. û got: Melek Ebdulla gelek ji destê Îranê tûreye û hêrsa wî jî ji nîgeraniya welatê wî ji bernameya navkî a Îranê ye. Herwiha hewceye xisûmeta dîrokî ya weke du eniyên sereke ên ola Îslamê jî li berçav bigre. Ew gotina Melik Ebdulla 15 roj piştî nûçeyeke rojnameya Taymz ya Brîtanî bû ku nivîsandibû Erebistanê îzna Îsraîlê daye ku ji bo êrîşa ser Îranê ji esmanê wî welatî mifah ê bistîne.

Debbax: Îraq ne polîsê Tirkiyeyê ye li dijî PKK şer bike



Berdevkê hikûmeta Iraqê Alî Debbax di civîneke çapemeniyê de ragiand ku Îraq ne polîsê Tirkiyeyê ye da ku li dijî PKK-ê şer bike.

Elî Debbax got rola Îraqê ya di mekanîzma sêqolî de ew e ku ji bo çareserkirina vê pirsê helwestekê bibîne, neku şer li dijî PKKê bike. Elî Debbax wisa dom kir mekanîzma ku navbera Iraq-Amerîka-Tirkiyeyê de hatiye avakirin ji bo kiryarên PKK-ê li herêmê kêm bike ye û di vê mijarê de agahiyan pêşkêşî hev bikin. Lê Iraq ne mecbûr e ku agahiyan bêberamber pêşkêşî Turkiye bike. Debbax got di vê mekanîzmê de Herêma Kurdistanê jî heye û pirrtir Tirkiye li dij e ku kurd di vê mekanîzmê de cî bigrin.

Hişdara Kilîntonê bi tepeserkaran:

## Dema mista hesinî bi dawî hatiye

Hîlarî Kilînton, Wezîra Derve ya Amerîkayê di sefera bo Lehistanê got: Hin welatên weke Îran, Kureya bakûr, Kûba û Zîmbabuwê hene ku di wan de girûpên nedewletî dikevin ber qedexekirin yan jî givaşan. Ew siyaseta givaşê şîweyek bû ku di sedsala 20'an de ji aliyê welatên komonîstî ve berevanî jê dihat kirin, lê niha ji aliyê kes yan hikûmetan ve tê birêvebirin ku xwazyarê berfirehkirina nifûza xwe ne.

Gerek em diwarê mistên asinîn ên ku hin dewlet di her ciheкê de ji bo derbedan ji civaka sivîl û ruha însaniyetê mifahê jê distînin, hişyar bin. Wezîra kar û barên Derve ya Amerîkayê ji şêwra mafê Mirov a saziya navnetewî daxwaz kir ku hewl û xebatên pêtir ji bo parastina civaka sivîl di welatên cur bi cur de encam bide.

